Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 48
30'ê September
Buha: 150 Tûmen

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Ocalan Bang Da PKK: "Werin Em Heya Dawiyê Çekan Binerd Bikin"



Serokê PKK'ê, Ebdulah Ocalan, li girtîxaneya Îmraliyê, di hevdîtina xwe ya roja çarşem, 27'ê Îlonê de, bi rêya parêzerên xwe, bang li PKK'ê kir ku şer bidin rawestandin...

Dom R. 6

**Celal Talebanî:**

# Bila Dewletên Îran, Turkiye Û Sûriyê Hişyarî Xwe Bin



Serok Komarê Îraqa Federal, rêzdar Celal Talebanî, di hevpeyvîneke de tevî radyoyeke Amerîkayî bi navê "NPR", hişyariyeke xurt da dewletên cîran ên wî welatî (Îran, Turkiye û Sûriyê) ku heke dest ji maytêkirin di kar û barên hundir yê Îraqê ber nedin, ev welate jî dê ji wan re arîşe û pirsgirêkan biafirîne. Eva bo cara yekemîn e ku birêz Celal Talebanî, Komara Îslamî ya Îranê bi maytêkirin di kar û barên hundir yê Îraqê gunehbar dike.

Rêzdar Talebanî, di hevpeyvîna xwe ya han li Amerîka, gefa vê çendê kir ku eger destêwerdanên van sê welatan berdewam bin, Îraq neçar dimîne ku dest bi kiryarên hewce bide.

Corc Buş, Serok Komarê DYA'ê jî hikûmetên Îran û Sûriyê bi maytêkirin di kar û barên navxwe yê Îraqê tawanbar kir û daxwaz ji wan kir ku pêşiya derbasbûna terorîstan ji tixûbên xwe bo hundirê Îraqê bigirin û vê pêvajoyê bidin rawestandin.

Di vê hevpeyvîna radyoyî de ji Celal Talebanî, pirs hate kirin, heke maytêkirina wan welatan di kar û barên hundir yê Îraqê bidome, hûn dê dest bi çi kar û kiryarekê bidin. Wî got: "Wê demê welatê wî dê dest bi dijkiryaran bike û ji girûpên neyar û dijber yên wan welatan piştevanî û piştgiriyê bikin."

**Jêder: "Radio Farda"**



## Daxuyaniya Deftera Siyasî Ya PDK Îranê Derheq Kiryara Terorîstî Ya Bajarê Amedê

Roja sêşem, 12.09.2006'ê Zayînî, hemberî, 21.06.1385'ê Rojî, seet 21:30'ê êvarê, di kiryareke terorîstî û nemirovane de li kêleka parka "Koşuyolu" li bajarê Diyarbekir (Amed)ê ya Kurdistana Turkiyê bombeyek teqî. Mixabin di encama vê teqînê de 10 welatiyên Kurd hatin kuştin û bi dehan kes jî birîndar bûn. Di nava kuştiyan de 7 zarokên sava û jin jî tên dîtin.

Ev bûyera dilêşîn û xemek bû sedema xem û kesereke zaf li bajarê Amedê û xelkê vî bajarî bo dema 3 rojan dikan û bazar bi nîşana nerazîbûnê daxisitin.



PDK Îranê tevî derbirîna kul û hevxemiya xwe tevî malbatên kuştî û birîndaran, ev kiryara terorîstî ji aliyê her kes yan aliyekê hatibe kirin, mehkûm û şermezar dike û bi kareke kirêt û dijî mirovî dihesibîne.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**18.09.2006**
**27.06.1385**

## Di Xwenîşandanekê De Xelkê Urmiyê Daxwaza Xwendinê Bi Zimanê Zikmakî Kirin



Roja şemî, 01.07.1385(23.09.2006)'an, hevdem tevî destpêbûna sala nû ya xwendinê li Îranê de, li gor daxuyaniya Azeriyên Urmiyê û ji bo derbirîna nerazîbûnê seba binpêkirina mafê xwendinê bi zimanê zikmakî ji aliyê Komara Îslamî ve, xwenîşandanek li ser şeqama "Xeyam" ya wî bajarî birêve çû.

Xwenîşandan bi beşdariya sedan kesan demjimêr 18:00'ê êvar dest pê kir. Hêzên serkutker ên rejîmê her li destpêka xwenîşanadanê de êrîş kirin ser xwenîşanderan û bi dehan kes girtin. Her wiha şeqamên girîng û sereke yên nava bajar ketne bin çavdêriya tund a hêzên Întizamî û pêşî li kombûna çend kesî hate girtin. Hêjayî gotinê ye ku neteweyên bindest ên Îranê bi giştî û Kurd û Azerî bi taybetî li mafê xwendinê bi zimanê zikmakî yê xwe bêpar in.

# Deqa Peyama Deftera Siyasî Ya PDK Îranê Bi Hinceta 14'hemîn Salvegera Şehîdên Terora Berlînê, Ji Aliyê Rêzdar Mihemednezîf Qadirî, Endamê Polîtbîroya Partiyê

**Hevwelatiyên hêja!**
**Xûşk û birayên xweştevî!**
**Kadro û Pêşmergeyên qehreman yên PDK Îranê**
**Mêvanên birêz!**

Îznê dixwazim ji aliyê Deftera Siyasî ya PDK Îranê ve biêxrahatina we bikim û sipasiya seha bilind û emekdar ya we bikim ku hûn di rê û resma 14'hemîn salvegera rêzgirtin ji şehîdên karesata Mîkunosê de beşdar bûne, bêguman pişikdariya we di vê kombûnê de nîşaneya sozdarî bi rêbaza pîroz ya partiya me a xebatkar û xebat û tekoşîna şehîdên nemir û asûdebûna canê paqij yê wan e.

**Xûşk û birayên delal!**

14 salan berî niha, di êvariya roja 17'ê Îlona 1992'an, de hevalê hêja û xebatkar, Dr. Sadiq Şerefkendî (Dr. Seîd), Sekreterê Giştî yê wê demê yePDK Îranê, û kekê Fetah Ebdulî, Endamê Komîteya Navendî û nûnerê partiyê li derveyî welat û kekê Humayon Erdelan, Kadroyê jêhatî yê partiya me û nûnerê PDK Îranê li Almaniyayê û Nûrî Dêhkurdî, xebatkarê rêya azadiyê û dostê dêrîn yê partiyê pêka komployeke di pêş de darêtî ya xayînane û tersorîstî ya serokên rejîma Komara Îslamî ji aliyê girûpên wan yên terosrîstî li xweringeha Mîkunosê ya bajarê Berlînê a Almanya êrîş li ser wan hat kirin û hatin şehîdkirin û careke din neteweya Kurd û PDK Îranê rastî, bûyereke dilêş û jandar kirin.

Ev kiryara terorîstî di demekê de ji aliyê terosrîstan ve birêve çû ku Dr. Seîd, piştî bi dawî hatina Kongireya Enternasyonala Sosyalîst, tevî parek ji xebatkarên opozîsyona Îranê bi armanca gotûbêj û guherandina dîtin û nêrînan ji bo gihîştin bi bernameyek siyasî ya hevbeş û çelengkirina bizava azadîxwaziya Îranê li dijî Komara Îslamî a Îranê li xweringeha Mîkunosê li hev civiyabûn. Li pey heyameke kin ji pêkhatina civîna han, terorîstên rejîmê ku agehedarê cihê civînê bûn, ji derfetê mifah standin û ew şehîd kirin. Bi vî awayî îxaneteke din derheq PDK Îranê û hemû hogirên azadî, demokrasî û mirovahiyê li seranserê cîhanê kir û rûpeleke reş ya din jî çû ser karnameya tejî şermezarî û riswayiya rejîma kevneperest û terorîstperwer ya Komara Îslamî a Îranê.

Serokên rejîma teror û tawanê, di demekê de Dr. Seîd Şerefkendî û hevalên wî şehîd kirin ku gelê Kurd û PDK Îranê, hêj birîna giran û kûr ya şehîdbûna rêberê mezin yê me Dr. Ebdulrehman Qsimlo, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê necebirîbû, bona vê çendê bi xeyala xwe ya şaş bikarin bejna bilind û bihyebet ya partiya me bitewînin û tevgera netewî û demokratîk a Kurdistanê rastî karesat, têkçûn û xebatkarên gelê Kurd jî tûşî bêhêvîtiyê û bêencamiyê bikin. Lê diyar bû ji ceribînên dîrokê ders ne wergirtine û nedizanîn xortên Kurd waneya berxwedanî û geldostiyê ji Pêşewayê nemir Qazî Mihemed û Dr. Qasimloyê hertim zindî hîn bûne û li beramberî wan cure bûyerane de dê qahîmtir bibin û mikumtir ji caran jî dê erk û wezîfeyên neteweyî û welatparêziyê bicî bînin û ji rêberên terorîstperwer ên Komara Îslamî re dê biselmînin ku xortên rojên tengayiyan in û heya bidestveanîna armancên gelê Kurd û rêberê xwe yên şehîd di çepera berxwedaniyê de dê bimînin û serbilindane ala partiya xwe dê bilind rabigirin û roha şehîdan jî şad bikin.

**Hevalên xweştevî!**

Gotin û axavtin li ser kesayetiya Dr. Seîd û baskirin ji xebat û tekoşîna wî û îşarekirin bi jêhatîbûn û rola wî ya şoreşvaniyê demek zaf dixwaze û pêkanîna dehan civînan jêre hewce ye. Lewma heke bi kurtî jî be, ez bi hewce dizanim îşareyek bi kuncek ji jiyan û serpêhatiya vî rêberê jêhatî yê gelê me bikim û rêz û hurmetê ji serwerî û rûmetên wî bigirim û ji ceribînên binirx yê wî dersê wer bigirim.

Xebatkarê mezin yê gelê me Dr. Sadiq Şerefkendî di sala 1316 (1937)'an li malbateke azadîxwaz û welatparêz ya Kurd û li gundê Terxe ya bajarê Bokanê jidayik bûye. Her ji temenê zarotiyê de tevî astengên jiyanê berbirû bûye û bawê xwe ji dest daye. Erkê serperestîkirina wî dikeve ser milê birayê wî yê mezin Mamosta Hejar, zanayê navdar û helbestvanê welatparêz yê gelê me. Xwendin heya qonaxa dîplomê wekî şagirdeke jîr û zîrek li bajarên Bokanê û Mehabadê û Tewrêzê kûta kir.

Piştre ji bo domandina xwendinê çû xwendingeha bilind ya Tehranê, di sala 1338(1959)'an de lîsteya kîmyayê wergirt û weke mamostayekê vegeriya Kurdistanê û li bajarên Mehabad û Urmiyê mijûlê wezîfa pîroz ya mamosta(wanebêj)yiyê bû. Bi sedema jêhatî, zanayî û xweştevîbûna wî di nava şagirdan de bû xwediyê ciheke taybetî û ji aliyê dezgeha ajan û sîxor ya rejîma Şah kete bin kontrol û çavdêriyê û li pey heyamekê bi çend kes ji heval û hevbîrên xwe re ji bo bajarên Erak û Kerecê hate dûrxistin. Di sala 1351(1972)'an de karî ji borseya xwendinê ya Wezareta Zanistê ji bo domandina xwendinê mifahê werbigre û bo wergirtina duktorayê biçe Fransayê. Sala 1352(1973)'an ji rêya rêberê mezin û leheng Dr. Qsimlo tevî bername û pêrewa hundirîn ya PDK Îranê tê nasiyarkirin û têkiliya rêxistinî û xebata siyasî a wî tevî PDK Îranê dest pê dike û piştî xilaskirina xwendinê li Fransayê û wergirtina duktoraya xwe di sala 1355(1976)'an vedigere welat û li bajarê Tehranê dibe maomstayê zanîngehê.

Dr. Seîd bi karê mamostatiyê re karê



Rêzdar Mihemednezîf Qadirî

siyasî û rêxistinî kiriye û karî ye di nava mamostayên zanîngehê, şagirdan û her wiha dinava kom û komeleyên Kurdî yên Tehranê de barname û siyaseta PDK Îranê bas bike û wan tevî armancên partiyê bide nasandin û bi rêxistina partiyê re û namaze tevî Dr. Qasimloyê nemir pêwendiyeke ser û ber çê bike.

Bi sedema jêhatî û kêrhatibûna wî di sala 1358(1980)'an de, piştî hilweşandina rejîma paşatiyê bû şêwirmendê Komîteya Navendî ya partiyê û ji wê demê hetanî şehîdbûnê pileyên siyasî û rêxisitnî û berpirsiyariyên partiyê heya Sekreterê Giştî bi destve anî û di hemûyan de jî bi jêhatîbûn û lêzanîneke zaf wezîfeyên xwe birêve birin û bû bi nimûneyê mirovekî welatparêz û şoreşvan yê gel û partiya me.

Dr. Seîd, xwediyê gelek xasmaniyên bilind bû, mirovek înasandost bû, şoreşvanek xelkî û xakî bû. Ew sadiq û dilpak bû. Kar û kiryarên bilind û hêja hebûn. Di kar û xebatên partiyê de midûr û rêbereke jêhatî bû. Tevî bêazînî û bê usûliyê û bêxîretî û derfetperestiyê dijberî dikir. Mirovek xwedî şiyan bû û ji mirovên xebatkar re hez dikir, di hemû derfet û fersendekê de cehd û hewl dida kadroyên jêhatî û xwedî karîn ji bo cî bi cîkirina erkên partiyê bielimîne.

Di karkirinê de bi bername û mikur bû. Bawerî bi rêxistina çeleng hebû, xebat dikir bi awayekî ser û ber û organî baş babet, siyaset û helwestên partiyê bi endamên partiyê bigihîjîne û dîtin û nêrînên wan jî bistîne.

Di warê ragihandinê de nivîskarek bişiyan û zana bû. Xizmetên Dr. Seîd di Radyo Dengê Kurdistanê û rojnameya KURDISTAN'ê de pareke berbiçav ji serweriyên vî xebatkarê serbilind in.

Di warê siyasî û dîplomatîk de mirovek şiyar, zana û nasyar tevî çanda dîplomasiyê

bû. Li hember bûyer û pirsên siyasî de helwestên ron û rast hebûn. Bi hêzên Kurdistanê re li ser berjewendiya neteweyî û niştîmanî dostînî û alîkarî dikir û tevî hêzên Îranî li ser hewildan ji bo pêkanîna azîn û usûlên demokrasiyê û piştgirîkirin ji mafên neteweyî yên gelên Îranê û bi taybet gelê Kurd bingeha pêwendî û hevxebatiyê ava dikir û digel hêzên biyanî jî li ser bingeha piştevanî ji mafên siyasî, mirovî û neteweyî yên gelê Kurd têkiliya siyasî û dîplomasiyê dadimezirand.

Her ev xislete Şoreşvaniye bû ku Dr. Seîd kire rêbereke jêhatî û kesayetiyeke navdar. Bi vê jêhatîbûnê ve piştî şehîdbûna rêberê me yê mezin Dr. Qasimlo, PDK Îranê di rewşa herî dijwar de rêberî kir û nîşan da diyariyeke kêrhatî yê Dr. Qasimlo ye. Her ev zîrekî û jêhatîbûne jî bû ku xweşî ji rejîma Komara Îslamî ya Îranê re birî û ketin fikra kompoloya şehîdkirina wî û aqibet ew ketin telika wan û nemirovane şehîd kirin.

Bi hezaran hêvî û xweziya xatir ji gelê Kurd û partiya xwe û xortên şoreşvan yên Kurd xwest û erkê domandina xebatê bi heval û hevçeperên xwe ve sipart.

**Ezîzno!**

Xebatkareke din yê partiya me ku di vê bûyerê de şehîd bû, heval Fetah Ebdulî, endamê Komîteya Navendî û nûnerê PDK Îranê li derveyî welat bû. Heval Fetah, yek ji kadroyên xebatkar yên partiyê bû ku ji dema pêwendî girtinê bi PDK Îranê re heya şehîdbûnê bi dilsojiyeke zaf xebat û tekoşîn dest pê kir û di heyamê tekoşîna xwe de bi jêhatîbûnê ve erkê şoreşgerî û welatparêziyê birêve biriye û pileyên rêxistinî heya endamê Komîteya Navendî serkevtiyane bezand, bi rûmet ve canê xwe di pêxema gelê Kurd de bext kir.

Şehîdeke din yê bûyera Mîkunosê kekê Humayon Erdelan, nûnerê PDK Îranê li welatê Almaniyayê bû. Heval Humayon Erdelan, jî yekek din ji kadroyên çeleng yê partiyê bû ku di heyamê xebata siyasî de dilsojane xizmeta gel û partiyê dikir û bi serbilindiyê ve çû rêza şehîdên Kurdistanê.

Goriyeke din yê vê cinayeta hovane, Nûrî Dêhkurdî, xebatkarê rêya azadî û demokrasyiê bû ku bêrehmane kete ber êrîşa terorîstên rejîma Komara Îslamî û canê xwe di rêya azadiyê de bexşand.

Xûşk û birayên delal!

Şehîdbûna rêbereke navdar wekî Dr. Seîd û hevalên wî ji bo tevgera serbestîxwaz ya Kurd û PDK Îranê û malbatên wan yên welatparêz xisareke mezin, bûyereke dilêş û ne çavnihêrîkirî bû.

Lewma ji aliyê kom û komeleyên siyasî û mirovhez ev kiryara terorîstî hate şermezarkirin û tevî PDK Îranê hevxemî kirin. Her di vê demê de jî dewleta Almaniya û dezgehên ewlekarî û dadê yên vî welatî xwestin li ser vê kiryara terorîstî vekolînê bikin û bikujên vê cinayetê bi cezaya wan tawanan bigihîjinin û ji raya giştî ya navneteweyî bidin nasandin.

Serok û bi nav nûnerê siyasî û



Rêberê leheng yê Kurd û Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, Dr. Sadiq Şerefkendî

dîplomatîk yên rejîma Komara Îslamî ya Îranê jî cehd û hewleke bilez dan ku pêvajoya gavên dewlet û dezgehên têkildar yên Almanya ji bo venasîn û eşkerekirina gunehbarên vê bûyerê ji rêya eslî derxin û nemaze di vê pirsê de gelek hewilîn ji ceribîna bûyera Viyenê û şehîdkirina rêberê me yê zana û mezin Dr. Ebdulrehman Qasimlo û hevalên wî mifahê werbigirin û bi dan û standinê bazirganiyê dewleta Almaniyayê jî razî bikin. Lê hestkirina bi berpirsiyariya dewletê, serxwebûna dezgeha dadê û hişiyariya polîsê Almaniya tev bizavên rejîma Komara Îslamî ya Îranê yan bêencam hêlan û berevajî xwestekên wan tevahiya cehd û şiyana xwe ji bo bi encam gihandina vê lêkolînê xiste rojevê bona vê çendê ku wan destên reş li pişta vê tawanê eşkere bikin û di nava kom û Komeleyên navneteweyî de şermezar bikin.

Eva bû piştî bêtir ji sê sal û nîvan lêkolînên berdewam ên Komîsyona taybet, dadgeha Almanya, aqibet di 10’ê Avrîla 1997’an de dezgeha dadê ya Almanya biryara xwe a netirsane û dadperwerane da xuyakirin.

Biryara vê tawanê li ser rêberên rejîmê ve di pileya bilind ya berpirsiyariyê de hatiye dayîn. Ev cehda mirovhezane ya dezgeha dadê ya Almanya hemû kom û komeleyên navneteweyî hejand û bû bi basa gişt navendên siyasî û ragihandinên giştî yên cîhanê û rejîma Komara Îslamî û rêberên terorîstperwer ên vê rejîmê mehkûm kir û ji aliyê welatên demokrat û pêşverû helwest li ser de hate giritn.

Li ser vê kiryara terorîstî ji bilî dezgeha dadê ya Almanya, dewleta Almanyayê jî di daxuyaniyekê de bi awayekî fermî ev kiryara rejîma Komara Îslamî ya Îranê mehkûm kirin û da xuyakirin, maytêkirina rêberên Komara Îslamî bi doza terora Mîkunosê de binpêkirina eşkere ya qanûnên navneteweyî ye û Almanya nikare kiryarên wisan bipejirîne û lezgînî, balyozên xwe ji Îranê paşde vexwendin. Dest ji siyaseta diyaloga rexnegirane li hemberî rejîma Îranê berda. Dewletê 4 kes ji bi nav dîplomatên Îranî li Almanya derxistin.

Her li pey vê helwesta dewleta Almanyayê bû ku Yekîtiya Ewropayê jî helwest girt û piştgirî ji pêngava dewleta Almanya kir û siyaset û rêbaza terorîstî ya Komara Îslamî rexne û şermezar kir. Di civîna Civata Wezîrên EY’ê de ku roja 29’ê Avrîla 1997’an, li Lokzamborgê pêk hat, piraniya welatên Ewropayê balyozên xwe ji bo welatên xwe vexwendin û biryar girtin vîzayê nedin wan kesên Îranê ku di karên terorîstî û sîxoriyê de dest hene.

Dewleta Amerîkayê jî piştî helwesta dewleta Almanya û YE’yê, hukmê dadgeha Mîkunosê bilind nirxani û şabûn û keyfxweşiya xwe ji encama wê lêkolînê da nîşandan û piştevanî ji wan cezayan kir ku ji aliyê YE’yê ve li ser rejîma Komara Îslamî a Îranê hatiye dayîn û bi helwesteke rastbînane zanî û bi sînordanînekê linavkir ku dikare pêşiya polîtîkoyên serberdayî û terorîstî yên Komara Îslamî ya Îranê di Rojhilata Navîn de bigire.

Bi giştî hukmê dadgeha Mîkunosê û hewl û cehdên dezgeha dadê ya Almanya rûmeteke mezin bû ji bo vî welatî û ji wan kesan re ku di eşkerekirina vê tawanê û nasandina gunehkarana de dest hebûne.

**Hevalên rêzdar!**

Piştî 27 salan, rejîma Komara Îslamî nekarî ye tu yek ji daxwaziyên bingehîn ên gelên Îranê û civatên xelkê cih bîne. Ev rejîme bi kiryar di rêyekê de diçe ku welat bêtir rastî derd, arîşe û zextan bike û ji karwanê pêşketinê paş dixe. Rejîm li ser siyaseta tund û tûjî di warê hundirîn de berdewam e.

- Binpêkarî di warên Mafê Mirovan û azadiyên demokratîk.
- Daxistin û qedexekirina rojname û belavokan û girtin û zîndanîkirina rojnamevan û çalakên Siyasî
- Bêhurmetîkirin bi jinan û serkutkirina xebata wan ya azadîxwazane
- Tûşkirina ciwanan bi Madeyên Bêhişker û gelek berçaviyên kirêt û biyom ên din yên civakî
- Domandina siyaseta tund û dûjî li hemberî neteweyên Îranê û qirkirina serhildanên aştîxwazane û azadîxwazane ên wan ji siyasetên neguher yên rejîma dîktator ya Komara Îslamî ne.

Di warê navneteweyî de jî:

- Siyaseta maytêkirin di kar û barên hundir ên welatan dike û alîkariyê dide kom û girûpên terorîstî yên deverê
- Îsrara Hizbelaha Lubnanê ji bo bidestnedana leşkerên Îsraîlî û destpêkirina şer tevî Îsraîlê ku bû sedema wêran, kavilbûn û ziyan û xisareke zaf ya canî û malî ya aliyên wî şerî.
- Xebata ji bo paşxistina prosesa aştiyê di Rojhilata Navîn de û pêkanîna şer û fitnê di navbera aliyê Filistînî de.
- Berdewambûn li alîkarîkirina girûpên terorîstî yên Îraqê û Efxanistanê û penadana wan di Îranê de ji bo dijberîkirin tevî bidestxistinên wan ên siyasî û têkdan û alozkirina rewşa tenahiya rejîmên wan welatan yên nû, biîşarebûna vê rejîmê li ser siyaseta piştevanîkirin ji terorîzmê ye.
- Pirsa hewildan ji bo gihîştin bi çekên

Etomî, domandina siyaseta qanûnşikandina navneteweyî û neyarîyên xwe tevî kom û komeleyên navneteweyî niha yê bûye baseke siyasî û dîplomatîk di asta cîhanî de û çarenivîsa welat berbi pêşerojeke ne diyar û cihê tirsê dibe.

Di hember van siyasetên terorîstî yên rejîmê de

PDK Îranê piştî şehîdbûna rêberê xebatkarê leheng yê gelê me Dr. Seîd, li tev warekê de nîşan daye her weke berê siwarê baş û çeleng yê qada xebat û tekoşînê bibe. Her ev hêz û şiyan û berxwedaniye bû ku rejîma Komara Îslamî a Îranê lerizand û jêre xuya kir nikare bi şehîdkirina rêberên wê bi hêvî û xweziyên xwe bigihîje.

- Her wekî emdizanin niha PDK Îranê ji aliyekê tevî hêzên siyasî ên Îranê, bi taybet hêzên siyasî yên neteweyên Îranê xebat û tekoşîna hevbeş û çeleng heye.

- Ji aliyê din ve jî bi aliyên siyasî yên mirovhez di asta navneteweyî de têkiliyeke siyasî dîplomatîk heye.

- Her wiha tevî hêzên siyasî ên Kurdistanê jî dostîtî û têkiliyeke berfireh ya neteweyî û niştimanî heye û bi serbilindî û rûmetê ve berjewendiyên netewî yên Kurdan parastiye û li ser vê siyasetê jî berdewam e.

**Xûşk û birayên hêja!**

Rejîma Komara Îslamî ya Îranê çavkaniya tev van arîşe û pirsgirêkane ye ku me qala wan kir. Rejîmek ku rêberê wê biryarderê terora Mîkunosê be û Serok Komarê vê yek ji terorîstên kiryara terorîstî ya Viyenê be, dikare çi xizmetekê bi gelên Îranê re bike? Ji tu aliyeke berpirs re şik û guman nemaye ku ev rejîme nikare siyasetên xwe tevî prosesa aştî, azadî û demokrasiyê rê bixe. Lewma hewce ye micidtir û gurtir ji caran bi alîkarî û hevxebatî tevî hêzên siyasî ên welatê me ji bo hiloşîna Komara Îslamî ya Îranê xebatê bikin û gelê Kurd û neteweyên têniyên azadî û serbestiya Îranê û hemû tagirên aştî û demokrasiyê di vê rejîma dîktator de azad bikin heya ewlehî û rihetî bal bi ser welatê me de bikişîne û ruha şehîdên karesata Mîkunosê û gişt şehîdên Kurdistanê û Îranê asûde û bêxem bikin.

Di 14'hemîn salvegera şehîdkirina Dr. Seîdê nemir û hevalên wî, bila em careke din soz û peymanê taze bikin ku hetanî bidestveanîna armancên wan ên bilind em domkerê rê û rêbaza teiî ji rûmet û serfiraziya wan bibin û rêz û hurmetê ji xebat û tekoşîna wan bigrin.

**- Silav ji canê paqij yê şehîdên karesata Mîkunosê.**

**- Bihiloşe rejîma terorîstperwer ya Komara Îslamî ya Îranê**

**- Serkeve xebata gelê Kurd li Kurdistana Îranê bi rêberiya PDK Îranê ji bo anîne ser karê sîstemeke demokrat û federal**

**-Silav ji alahilghirên rêbaza Qazî, Qasimlo û Şerefkendî**

**Sipasiya we dikim.**

# Ji Bo Yekemîn Car Di Parlemana Ewropayê De Li Ser "Rewşa Kêmaniyên Qewmî Di Îranê De! Civînek Hat Lidraxisitn



Demjimêr 11:30'ê roja pêncşem 14.09.2006'an, "şanda Parlemana Ewropa ji bo pêwendî tevî Îranê" di bin navê "**Rewşa Kêmaniyên Qewmî di Îranê de**", li Parlemana Ewropayê li bajarê Birûksel a paytexta Beljîkayê de civînek lidarxist.

Ji bo axavtin û şirovekirin derheq aliyên civîna han de 3 kesên li jêr de hatî hatibûn gazîkirin:

- Nûnerek ji aliyê Kongireya Neteweyên Îrana Federal.
- Nûnerek ji aliyê Balyozxaneya Komara Îslamî li Beljîkê.
- Karnasek ji Enistîtûya Ewropayê ya Lêkolîn li ser kar û barên ewlekariyê.

Di destpêkê de xatûna "Angelika Beer", berpirsa şanda Parlemana Ewropa ji bo pêwendiyê tevî Îranê ku her bixwe jî birêveberiya civînê dikir, bixêrhatina mêvan û beşdarên civînê kir û piştre tevî nasandina kesên ku qirar bû di civînê de biaxivin, ji wan xwest ku basên xwe pêşkêş bikin.

Birêz Dr. "Walter Posh", ji Enistîtûya Ewropî ya Lêkolîn li ser kar û barên Ewlekariyê weke yekemîn axavtinkerê vê civînê îşare bi dîrok û pêkhateya civakî ya Îranê kir û çavkaniya pirsgirêkên "Kêmaniyên qewmî" di demekê de da zanîn ku Riza Şah bi çavlêkeriya Mistefa Kemal(Ataturk) ji bo pêkanîna dewleteke hevgirtî dixebitî û bi neberçavgirtina pirrengiya neteweyî û çandî, kêmaniyên neteweyî ji bîra xwe birin. Dr. Poş, her wiha birêvenebirina wan eslên yasaya bingehîn ku bas ji mafê kêmaniyan dike, sebebê nerazîbûn û ne ewlehiyê di navbera kêmaniyên netewî da zanîn.

Dr. Mîro Eliyar, duyemîn axavtinkerê civînê, bi nûnerayetiya Kongireya Neteweyên Îrana Federal, rewş û hilkevta neteweyên ne Fars ên Îranê şirove kirin ku çawan di Komara Îslamî de ketine bin zulm û sitemên çandî, mesebî û civakî.

Her wiha navhatî li ser cihgirkirina demokrasî û mafê mirovan li Îranê de tekez kir û ev yeka jî tenê li benda çareserkirina siyasî û adîlane ya pirsgirêkên neteweyan zanî. Piştre Dr. Eliyar, avakirina Kongireya Neteweyên Îrana Federal hewleke dîrokî dazanîn û şiroveyek li ser siyaset û helwestên vê kongireyê pêşkêş kir. Navhatî di dawiyê de tevî negetîv zanîna netîceya siyaseta dewletên Ewropayî li hember Komara Îslamî ya Îranê di 26 salên borî de, hêvî xwest ku YE bi liberçavgirtina guhertinên mehên borî di Îranê de pêreçûnekê di helwestên xwe de bike û derheq Îranê siyasetekê bigire pêşiya xwe ku li ser bingehên berevanîkirin ji cihgirkirina azadî, demokrasî û bidestveanîna mafên neteweyî û mirovî yên gelên bindest di Îranê de tekez bike.

Piştre nûnerê balyozxaneya Komra Îslamî li Beljîkê, Riza Zebîb, li ser daxwaza birêveberên civînê basek pêşkêş kir. Navhatî mafê kêmaniyên neteweyî parek ji mafê mirovan hesiband û berçavgirtina wan mafan erkê hemû aliyan da zanîn. Her wiha şîret da Ewropayiyan ku berî her tiştî li hizra çareserkirina pirsgirêkên pêwendîdar bi mafê mirovan li hundir welatên xwe de bin. Zebîb, li dor parastina mafê mirovan, Ewropayî bi du rûyiyê tawanbar kirin û nimûneya wê jî di vê derheqê de, bêdengiya welatên Ewropayî li hember binpêkirina mafê mirovan ji aliyê Îsraîlê di Lubnanê de bû. Dîplomatê Komara Îslamî tevî nasandina Amerîkayê weke berpirsê nearamî(neewlehiyê) di navbera Kêmaniyên neteweyî da, anî ziman ku neteweyên Îranî bi sedan sal e ku li rex yek bi aştî û biratî dijîn, xwediyê mafê wekhev in di welat de û nûnerê xwe jî li parlemana welat de hene. Ji bo selimandina gotinên xwe derheq hebûna mafê wekhev yên neteweyan, navhatî îşare bi Azerîbûna Ayetula Xameneyî û hin berpirsên din ên rejîmê û her wiha hebûna wezîreke Ereb li dewleta birêz Xatemî de kir. Lê neda zanîn ku:

1- Heke kêmaniyên neteweyî di rewşeke baş de ne û xwedî mafê wekhev in, weke welatiyên Fars, lê ji ber çi li bin bandora haydarên bîhanî de ne, pê li ser wan hemû tenahî û xweşiyan didanin û bi xistine xetera canê xwe tên ser şeqaman û meşên nerazîbûnê birêdixin?

2- Azerîbûna parek ji berpirsên Komara Îslamî û hebûna wezîreke Ereb, çi derdek ji derdên du neteweyên Azerî û Ereb derman kiriye û vêcek ji wan re hebûye?

Beşa dawiyê ya vê civînê jî weke hemû civînan ji pirsiyar û bersivan re hatibû terxankirin ku hijmarek zaf ji parlemantaran beşdarî tê de kirin û nêrînên xwe anîn ziman.

Di civîna han de ku demjimêrek û nîvan dom kir hijmareke berçav ji endamên parlemana Ewropayî yên weke:

1- Birêz "Ingo Friedrich", yek ji cîgirên berpirsê Parlemana Ewropayê.
2- Xatûna "Angelika Beer".
3- Birêz "Michael Galher"
4- Birêz "Paulo Caseca".

Beşdarî kirin.

Girîngiya vê civîna taybet di vê çendê de bû ku ji bo cara yekemîn bû ku Parlemana Ewropayê bi awayê fermî civînekê li ser bas û gotûbêjê derheq neteweyên bindest ên Îranê pêk tîne.

**Deqa Axavtina Dr. Mîro Eliyar Bi Nûnerayetiya Kongireya Neteweyên Îrana Federal, Di Civîna 14'ê Îlona 2006'an, Di Parlemana Ewropayê De**

# "Rewşa Kêmaniyên Qewmî Di Îranê De"




Xanima "Angelika Beer"!

Xûşk û birayên birêz!

Li destpêkê de iznê bidin min ku ez ji aliyê Kongireya Neteweyên Îrana Federal sipasiya germ ya xwe pêşkêşî "Heyeta Parlemana Ewropayê bona têkiliya bi Îranê re" bikim. Dîsan ez gelek sipasê li we dikim bona vexwendina min bo vira.

Hûn agehdar in ku Îran welatekî pir neteweyî ye ku tê de ji bilî neteweya Fars, Turkên Azerî, Kurd, Ereb, Belûç, Turkemen û çend kêmaniyên din ên qewmî û mesebî tê de dijîn.

Her wisa hûn dizanin ku neteweyên ne Fars ku nifûsa wan 2/3 a gişt nifûsa Îranê tê texmînkirin, weke gelên xwedî ziman, çand û dîroka taybet bi xwe bi fermî nahêne naskirin û bi tundî li jêr zilm û sitema netewî de ne.

Ezê vira de ji goteyên "netewe" an "gel" mifahê werbigirim û goteyên şaş ên "Kêmaniyên qewmî" bi kar nabim. Çimku di Îranê de çi yek ji wan 6 neteweyan bi tenê ne piranî ne. Lewma heke piranî tune be, kêmanî jî nikare hebe. Mirov tenê dikare her yek ji wan neteweyan li gorî gişt nifûsa Îranê kêmanî bihesibîne.

Komara Îslamî a Îranê lewra nasnameya gelên ne Fars bi fermî nas nake, çimku bi raya wan, netewên ne Fars, Îranî û misilman in, bi hevre Umeta Îslamî û Îranê pêk tînin, lewre jî xwediyê mafên wekhev û xêra Îslamê ne.

Lê di rastî de ev deiya bona nepenî hiştina bîra nasyonalîzma berçavteng a netewa desthilatdar e. Nasyonalîzmek ku siyaseta rejîma Îslamî li hember netewên belengaz li ser wê sekiniye.

Ev siyaseta bi bîrên şowînîstî, li ser hemû aliyên jiyana netewên belengaz bandora xwe ya kavilker û nigatîv daniye.

Ew ji gişt mafên xwe yên neteweyî, çandî û mirovî bêpar in.

Bi sedema qedexebûna xwendina bi zimanê dayîkê, zarokên netewên ne Fars ji mafên mirovî ên xwe yên herî destpêkî bêpar in.

Lewma radeya nexwendeyiyê di nava netewên ne Fars de çend hemberî nifûsa Farszimana ye.

Her cure daxwazeke rewa a siyasî, çandî, mirovî û heta aborî ji aliyê neteweyan ve, bi hêceta cudahîxwaziyê an jî bi hêceta vê ku bîhaniyan ev haydane, nayê qebûlkirin û ew netewe têne tepeserkirin.

Çalakiyên siyasî ên netewî di Îranê de, heta çalakvanên mafê mirovan li jêr navên sivik û bê rûmet weke qaçaxçiyên madeyên sirker, sernixûnkar û sîxorên Rojava têne girtin, dikevin jêr îşkencê de, têne kuştin an jî îdamkirin.

Girtinên xweser, îşkence, destdirêjî li darvekirin û bê serûşûn kirin, di herêmên netewên ne Fars de karekî rojane ye.

Hetanî niha bi sedan kesayetî û çalakvanên siyasî, mesebî, çandî, parêzvanên mafên mirovan û jinan û rewşenbîrên ser bi wan li navxwe û li derveyî welat bûne goriyê terorîzma dewletî a rejîma Îslamî.

Li gorî zanyariyên siyasî ên çalakvanên mafên mirovan, pitir ji 1000 kes ji çalakvanên siyasî ên neteweyan di girtîxaneyên rejîmê de li rewşeke pir aloz de têne ragirtin. Mirin gefê li canê bi hezaran girtiyên siyasî dike ku heta ciyê ragirtina wan jî ne diyar e.

Bi sedema girîngî nedana rejîma Îslamî bi sermayedanîna di herêmên ne Fars de, destengî, bêkarî, mutadî, koçberî û xwekuştinê aliyên bi tirs û sam bi xwe ve girtine.

Di Komara Îslamî de û li derheq netewên ne Fars, ne tenê bi sitema netewî û binpêkirina mafên mirovan, belku bi tepeserî û apartayda mesebî jî "rewatiya yasayî" hatiye dan.

Hûn dizanin ku "şîiya esna eşer" meseba fermî a welat e. Li gor yasaya bingehîn tevaya berpirsiyarî, organên kilîdî û biryarder di welat de, heta endametiya di wan organan de û her weha fermandehiya dezgehên leşkerî divêt li qorix û hisara hevwelatiyên Şîî meseb bin. Eva di halekê de ye ku bi milyonan kes ji nifûsa Îranê Sunî mesb in.

Ji bilî vê yekê jî, gelek hemwelatiyên Şîîmeseb jî hene ku seba vê ku Fars ninin, berpirsiyrariyên girîng bi wan nahên dan.

**Xûşk û birayên hêja!**

Bi merema rakirina ferq û cudahiyê û tepeserî û her weha xebata hevbeş bona bidestveanîna mafên xwe hejmareke partî û saziyên ser bi netewên li jêr zilm û sitemê di 20'ê Fêwriyeya 2005'an di gaveke dîrokî de **Kongireya Neteweyên Îrana Federal** pêk anîn.

Eva bo yekemîn car di dîrokê de ye ku hêzên siyasî ji gişt neteweyên belengaz saziyeke mezintir ji partiyekê (Serweyî Hizbî) bi merema serûberkirina çalakiyên xwe ên siyasî pêk tînin.

Ev kongireye bona avakirina Îraneke demokratîk, sekolar û federal cehd û tekoşînê dike.

Bi awayekî din, partî û saziyên endam di kongireyê de berevajî deiyên rejîmê û hinek ji saziyên nasyonalîstî ên seranserî, daxwazkarê çareseriya siyasî a pirsa neteweyan di hundirê Îranê û daxwazkarê mafên wekhev ji bo gişt netewên akincî yê Îranê ne.

Di yekemîn daxwaziya kongrê de hatiye "Îran ya gişt xelkê û ya gişt neteweyên Îranê ye".

Em bawer in ku di Îraneke demokratîk û federal de hem çarçoveya erdî a Îranê dê bihê parastin hem jî mafên netewî û mirovî ên netewên ne Fars dê ser bigirn.

Lê cîgirbûna demokrasî, aştî, aramî û ewlehiyê di Îranê de berî her tiştî girêdayiyê çareseriyê bicî û adilane a pirsa neteweyan e.

Dîroka nêzî sedsalan berî niha a Îranê nîşan dide ku yek ji egerên eslî ên têkçûn û bi encam negihîştina tevgerên demokrasiyê di welat de, di rastî de girîngî nedan bi pir netewî û pirçandî a vî welatî bûye. Bi awayekî din cehd û tekoşîn bo demokrasiyê bi bêy berçavgirtina mafên neteweyan hatiye kirin.

Herwek min di destpêka axavtina xwe de got, gelên ne Fars nêzîk 2/3 a nifûsa Îranê pêk tînin.

Bi vî awayî dê bê wate be, heke em bas ji demokrasiyê û mafên mirovan di welatekê de bikin ku 2/3 a xelkê wê ji mafê xwe bêpar bin û tevî wan weke welatiyên pile 2 riftar bihê kirin.

Mixabin îro jî hejmareke hêzên siyasî ên Îranê şaşiyên rabihurî ducarî dikin. Di halekê de ku her cure cehd û tekoşînek bona demokratîzekirina Îranê bi bêy çareseriya siyasî a pirsa neteweyan dê bê encam bimîne û ser nakeve.

Heta mana Îranê bi vî awayî girêdayî ye bi fermî naskirina nasname û berçavgirtina daxwazên netewên ne Fars.

**Beşdarên birêz!**

Îran welateke mezin û gelek dewlemend e û di warê coxrafiyayî – Stratejîkî da gelekî girîng e. Eva ku Îran çi rolekê di siyaseta cîhanî de dilîze, avaker an kavilker, eva girêdayiyê sîstema zal bi ser vî welatî ye.

Îran li jêr rêberiya Komara Îslamî de binpêkarê mafên mirovan e, xelkê xwe bi awayê sîstematîk tepeser dike, ferq û cudahiyê di navbera kêmaniyên mesebî de didanê, di herêmên netewên ne Fars de siyaseta ji holê rakirina qewmî bi kar dibe, bêhurmetiyê bi jinan diket, destêwerdanê di nava kar û barên welatên cîran de dike û naxwaze ewlehî hebe, hevkariya malî û locîstîkî bi saziyên terorîstî re dike, gefa ji navbirina welatan dike, di pêvajoya aşatiya Rojhilata Navîn de astengan pêk tîne, dixwaze terorîzma dewletî bike siyaseta xwe a fermî û piştevaniyê ji terorîzma navneteweyî dike û bi kurtî ev rejîma di cehd û tekoşîna ji bo bidestveanîna çekên komkuj yên Etomî de, dixwaze di nava civaka cîhanî de alozî û astengan pêk bîne.

Li hember de sîstemeke demokratîk di Îranê de dikare civaka xwe berbi pêşkevtinê bibe, aboriya lawaz baştir bike, di hundirê welat de ewlekariyê cîgir bike, bi cîgirbûna

ewlekarî û aramî û demokrasiyê di herêmê de hevkariyê bike û di encamê de weke endameke bibandor ji civaka navneteweyî, aştiya cîhanî xwedî hêz bike.

Li dawiyê de ez dixwazim qala siyaseta YE'ê li hemberî Îranê de bikim, hemen siyaseta naskirî bi "Diyaloga Rexnegirane" an jî "Diyaloga avaker".

Siyaseta YE'ê di 26 salên rabihurî de mixabin nebû sebebê pêkhatina guhertinên pozetîv di Îranê de. Berevajî, ev siyaseta tenê bû sedema xwedîhêz bûna rejîmê, bi awayekê ku îro rojê bûye xetereke mezin bo ewlehiya cîhanê.

Domhebûna siyaseta nerm û sazanê li hember rejîma Îranê de dibe sebebê bêhêvîbûna pitir a xelkê welat û hêzên demokratîk ên Îranê ji siyaseta Rojeva di warê kar û barên demokrasî û mafên mirovan de.

Di her cihekê de nermî û paşkêşe li hember gef û terorîzmê de, bi her awayekê ciyê girêdayîbûna bi bingehên demokratîk û micidbûna di siyasetê de bigre, vîn û baweriya mirovan bi çareseriya aştîxwazane û demokratîk a pirsgirêkan dê tûşî aloziyan bin û mifahwergirtin ji zor û terorê weke alev bona gihîştin bi armancan pitir dê bihê holê û ev rewşa jî di dawiyê de nikare bi qazancê çi aliyekê be.

**Xûşk û birayên hêja!**

Bona xebateke bibandor dijberî terorîzma navneteweyî, cîgirkirina wekhevî û ewlehiya siyasî û cîgirbûna mafê mirovan di Rojhilata Navîn de û cîgirkirina ewlekariya cîhanî, Îran divêt bête demokratîzekirin. Alternatîveke dinê tune ye.

YE, dikare roleke avaker û berçav di warê demokratîzekirina Îranê de bilîze. Welatên endam mixabin di siyaseta xwe tevî Îranê de, pitir rastiya pirnetewîbûna Îranê berçav nagirin û li hember tepeseriyên hovane ên netewên ne Fars de bêdeng in. Guherînên di vê helwestê de bi qazancê YE'ê ne jî.

Çimku ji bo hemûyan eşkere ye ku tevgerên netewî ên neteweyan di Îranê de roj bi rojê xwedîhêztir dibin û çarçoveyeke serûbertir bi xwe ve digirin, ev rastiya bi bêy çi şik û gumanekê di pêşeroja Îranê de dê roleke erênî bilîze.

Ev rewşa û guhertinên din ên siyasî û civakî yên çend mehên borî di Îranê de, dixwaze YE siyaseteke nû li hember Îranê de berçav bigre. Siyasetek ku tê de ez hêvîxwazim, pirsa demokrasiyê û mafên mirovan ji vê hindê zêdetir nakeve jêr bandora qazanc û berjewendiyên siyasî û aborî ji çareseriya pirsa mafê neteweyî a netewên belengaz û daxwazên wan bi awayekî micid piştevanî bête kirin.

Gelekî sipas ku we guhdariya axavtina min kir.

**Werger bi Kurmancî: Şehab Xalidî**

---

**Doma Nûçeya Rûpela 1**

Ocalan, di banga xwe de got:

Werin em hemû bi hev re heta û heta dest ji çekan berdin û çekên xwe bin erd bikin...

Serok Komarê Îraqê, Celal Talebanî jî li Amerîkayê xebatên di warê agirbestê de eşkere kiribû û gotibû ku divê pirsgirêkên Turkiyê bi rêyên aştiyane bên çareserkirin.

Desthilatdarên Turkiyeyê roja çarşemê dabûn xuyankirin ku peywendiya Talabanî bi PKK'ê re ne bi dilê wan e.

Bersiva herî tund jî, ji aliyê Cemîl Çîçek ve hatibû dayîn.

Wezîrê Dadê ye Tirkiyê Çîçek gotibû ku peywendiya bi PKK'ê re li dijî polîtîkayên wan e.

Ji aliyê din ve, nûnerê Amerîkayê yê di warê çareserkirina pirsgirêka kurdî de li Turkiyê, general Ralston jî diyar kir ku eger weke ku tê gotin PKK dest ji çekan berde, ewê tiştekî baş be.

Hêjayî gotinê ye, berî ku Ocalan bangî partiya xwe bike, li başûrê Kurdistanê partiya wî jî bi daxwaza desthilata Herêma Kurdistanê û Amerîkayê soza rawestandina şer dabû.

**Jêder: TISHK TV**

# Gerek Kurt Di Dîrokê De ...

**Amadekar: Nûredîn Sofîzade**

**16.09.194** – Rizaxan ji bo girava Morîsê û piştre bo "Johansborgê" li Afrîqaya Başûr hate dûrxistin û hikûmeta wî hilweşiya.

**17.09.1992** – Dr. Sadiq Şerefkendî, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê tevî Fetah Ebdulî, endamê Komîteya Navendî û nûnerê partiyê li derveyî welat û Humayon Erdelan, nûnerê partiyê li Almaniya û Nûrî Dêhkurdî, kesayetiyê siyasî yê Îranî li xwaringeha Mîkonosê li bajarê Berlîna Almaniyayê bi destê terorîstên Komara Îslamî ya Îranê ve hatin terorkirin.

**17.09.1978** – Peyamana Kamp Deywîd'ê ji aliyê Minexim Bîgin û Enwer Sadat û Yasir Erefat ji bo vebûna deriyên aşîtiyê hate girêdan.

**18.09.1973** – Almana Rojhilat û Almana Rojava wek endam di Rêxistina Neteweyên Yekbûyî de hatin wergirtin.

**18.09.1983** – Di nava axa Libnanê de leşkerên Sûriyê û Libnanê li dijî hev şerek giran kirin. Sûriyê wek dagirker hêzên xwe bire Başûra Libnanê û nêzîkê tixûbê Îsraîlê ku bû egera aloziyên çendîn salî.

**18.09.1920** – Xelkê bajarê Akirê ya Kurdistana Îraqê li dijî leşkerên Îngilîstanê serhildan.

**18.09.1924** – Rojnameya "Jiyanewe" li bajarê Silêmaniyê hate weşandin.

**18.09.2003** – Şikur Mistefa, nivîskar û rewşenbîrê mezin yê Kurd koça dawiyê kir. Ew di temenê 79 saliyê de çû ber dilovaniya xwe. Wî xizmetên mezin bi edebiyat û çanda Kurdî re kirin û gelek berhemên wî li ser ziman û çanda kurdî hene.

**19.09.1985** – Li Mekzîkê erdhejeke bi qaweta 8.1 rîşterê qewimî ku bû sebebê kuştina 12 hezar kesan.

**19.09.2005** – Jine hunermenda Kurd, Merziye Ferîqî koça dawiyê kir.

**20.09.1987** – Mamosta Tahir Tofîq koça dawiyê kir.

**20.09.1991** – Wilayeta Ermenistanê ku pêştir ser bi Yekîtiya Soviyetê bû, serxwebûna xwe îlan kir.

**21.09.1985** – Di şereke giran de tevî hêzên Komara Îslamî a Îranê li gundê Girgula jor û jêr, Pêşmergeyên Hêza Şehîd Efşîn karîn derbeyeke giran li dujmin bidin. Mixabin di wî şerî de 8 Pêşmerge bi navên: 1. Omer Qeyteran, fermandê Hêza Şehîd Efşîn, 2. Îbrahîm Mehmûdî 3. Resûl Erebî 4. Mihemed Mistefapûr 5. Rehman Şêxanî 6. Seyîdelî Tirîte 7. Selah Xakî 8. Mihemed Sawcîbulaxî şehîd bûn.

**21.09.2000** – Helbastvanê navdar yê Îranê, Fireydûn Muşîrî di temenê 74 saliyê de koça dawiyê kir.

**22.09.1980** – Destpêkirina şerê malwêranker yê Îran û Îraqê ku bi êrîşa hêzên Îraqî dest pê kir û heya 8 salan dom kir.

**22.09.1980** – Sergurd Hebîbulah Ebasî, endamê Komîteya Navendî a PDK Îranê bi destê Pasdareke xelkê Urmiyê li Mehabadê de hate terorkirin.

**24.09.1984** – Bi sedema êrîşa hêzên Komara Îslamî a Îranê bo ser devera Mirgewer a Urmiyê 5 Kadrên PDK Îranê bi navên 1. Xelîl Ebdulahpûr, 2. Silêman Abirîn, 3. Mela Simaîl Kurdnejad, 4. Xelîl Şêxî, 5. Nûredîn Cebariyan, şehîd bûn.

**24.09.1998** – Helbestvanê navdar yê Kurd, Sebrî Botanî di welatê Norwejê de koça dawiyê kir.

**25.09.1945** – Li Mehabadê Kongireya Çand û Edebiyata Kurdî pêk hat.

**25.09.2004** – Seba bêhurmetîkirina alîgirên Komara Îslamî ya Îranê bi çand û ola Ehlê Heq (Goraran) li bajarê Miyandavê de şer û alozî pêk hat ku di encam de 20 kes ji xelkê Goran hatin kuştin.

**26.09.1983** – Li şerekê di navbera Pêşmerge û hêzên rejîma Komara Îslamî ya Îranê li devera Merîwanê de 8 Pêşmergeyên PDK Îranê ji hêza "Zirêvar" bi navên, 1. Yûnis Newrozî, 2. Nemet Ehmedî, 3. Mihemed Ehmedî, 4. Taha Rostemî, 5. Xusrew Nadirî, 6. Nasir Xelîlî, 7. Selîm Rencber, 8. Mehdî Pîrî, şehîd bûn.

**27.09.1973** – Pêkhatina sêyemîn kongireya PDK Îranê û pejirandina pirogram û pêrewa hundirîn a nû û herwiha hilbijartina endamên Komîteya Navendî ji bo partiyê û dana reng û rûyê siyasî û rêxistinî bi PDK Îranê.

**28.09.1869** – Damezirandina yekemîn Enternasyonala Sosyalîst.

**28.09.1994** – Ebdulah Şerîfî, endamê Komîteya Navendî a PDK Îranê tevî Pêşmergeyek bi navê Qerenî Mamnebî li devera Gewirka Mehabadê di şerekê tevî hêzên rejîma Komara Îslamî ya Îranê de şehîd bûn.

**29.09.1987** – Xidir Xidirî naskirî bi "Xidir Sor" Fermandê Hêza Pêşewa şehîd bû.

**30.09** – Roja Cîhanî ya Ker û Lalan.

**30.09** – Roja Cîhanî ya behirvaniyê.

# Carnameya Pêşgîrî Ji Tund Û Tûjî Dijî Jinan

**Beşa 2**

Di vê carnameyê de merem ji biwêja "tund û tûjî li dijî jinan" her kiryareke tund û tûj li ser bingeha regezî ye ku bibe sedema azardan û êşandina cendekî, cismî yan derûnî ya jinan, yan jî renge bibe sedema van terze azar û zirarane. Gef, yan kiryareke bi vî awayî, zorîkirin ji jinan, bêparkirina zorî ya wan ji azadiyê ku pêşçavê xelkê yan jî di çarçoveya jiyana taybetî a wan de rû dide, di rêza riftar û kiryarên tund û tûj de ne.

**Madeya 2:**

Lêkolîn û berhevdana tund û tûjiya dijî jinan ev xalên jêrîn bi xwe vedigre, lê her bi van nimûnane ve jî nahê girêdan:

- Tund û tûjiyên cendekî, zayendî û derûnî ku di malbatê de diqewimin. Bo mînak, lêdan û kotan, azardana cinsî ya keçên nûciwan di malbatê de, tund û tûjî derheq bi cihêz, destdirêjî ji aliyê mêr ve, sunetkirina jinan û ev deb û tîtalên ku zirarê digihijînne jinan, tund û tujî li derveyî sînorê jiyana hevbeş û



tund û tujiya taybet bi jinan.

- Tund û tûjiyên cendekî, zayendî û derûnî ku li rex jiyana bikom de rû didin, bo mînak: Destdirêjî, mifahwergirtina nebaş ya cinsî, azardana cinsî û tirsandin ji cihê kar, li navendên hînkirin û cihên din, kirîn û firotina jinan û laşfirotina bi zorê.
- Tund û tûjiyên cendekî, zayendî û derûnî ku ji aliyê dewletê ve tên encamdayîn, yan ji aliyê dewletê ve tê piştguh xistin.

**Madeya 3:**

Jin bi awayekî wekhev [tevî mêran] mafê destpêgihîştin bi hemû mafên mirovî û azadiyên bingehîn di warên siyasî, civakî, kulturî, medenî û hemû warên din de, herweha mafê parastina van maf û azadiyane heye. Ev mafene pêkhatîne ji:

- Mafê jiyanê(6)
- Mafê wekhevî(7)
- Mafê azadî û tenahiya takekesî(8)
- Mafê piştgirî ji aliyê yasayê ve(7)
- Mafê rizgarî ji hemû terzên cudahîdananê re(7)
- Mafê mifahstandin ji bêtirîn qasê jêhat yê saxlemiya cendekî û derûnî(9)
- Mafê (hebûna) rewş û zirûfa dadperwerane û cihê rezamendiyê ji bo kar(10)
- Mafê vê ku tak nekeve ber îşkence yan ceza û riftarên tund û tûj, nemirovî û tejî ji sivikatî(11)

**Madeya 4:**

Divêt dewlet tund û tûjiya li dijî jinan mehkûm û protesto bikin û nabe tu deb û tîtalek, yan têdîtinek ayînî, bikin bi hêcet ji bo encam nedana erkên xwe derheq nehêlana tund û tûjiyê. Dewlet divêt bi mifahwergirtin ji hemû metodên jêhat û bêrawestan siyaseta hilgirtina tund û tûjiya li dijî jinan heya encama xwe ya dawîn bidomînin. Herweha divêt:

- Ger heya niha bi tevahî xwe bi nisbet peyamana rakirin û ji navbirina hemû terzên ferq û cudahîdananan li dijî jinan xwe berpirsiyar nezanîne, divêt bipejirînin, yan bi awayekî fermî bibin bi endamê wê û dest ji mercên taybetî yên xwe li ser vê peymanê hilgirin.
- Bi stûgirtina her terze tund û tûjiyekê xwe biparêzin.
- Bi merema pêşgîrî ji tund û tûjî û encamdana lêkolînan di vê pêwendiyê de, diyarîkirina cezayê bo kiryarên tund û tûj li dijî jinan, hemû cehd û hewleke hewce li gor yasayên welat bidin. Vêca ev kiryarane çi ji aliyê dewletê ve hatibin encamdan, yan jî ji aliyê kesên taybet ve.
- Di yasayên welat de divêt gelaleya fermî ya cezayî, medenî, karî û îdarî ji bo qerebûkirina van şaşiyan bihê kirin, derheq jinên ku tund û tûjî li dijî wan hatiye encam dayîn. Ew jinên ku bi tund û tûjiyê ve berbirû dibin, divêt rêçareyên dadê ji wan re bihên misogerkirin, bi piştevaniya yasayên welat zirar û ziyanên wan bi awayekî dadperwerane û karîger bihên qerebûkirin. Herweha dewlet divêt jinan ji mafên xwe bi nisbet daxwaza qerebûkirina zirar û ziyan û bidestveanîna karîn û şiyanan ji rêya van rêçareyan ve agehdar bike.
- Bernameya neteweyî bi merema xurtkirina piştgirî ji jinan ji bo berevanîkirin digel her terze şîdetekê, yan zêdekirina hin madeyan di bernameyên xwe de bi vê meremê, herweha hevkariyên baş û jêhatî di hin waran de tevî rêxistinên ne dewletî bi taybetî tevî van rêxistinên ku mijûlî doza tund û tûjiyê ne.
- Diyarîkirina rêyên pêşgîrî ji tund û tûjî, danîna bernameyeke giştgir a karî di warên hiqûqî, siyasî, îdarî û kulturî de ku piştevaniyê ji jinan li hemberî her terze şîdetekê xurttir dikin û dibin desteber (garantî)ek ji bo vê ku jin derheq hestyarnebûna yasayê li dor têdîtinên zayendî û li encama awayên birêvebirina qanûnê û xwe têkelkirinên dewletî yên din, nabin goriyên tund û tûjiyê.

**Werger: Rondik**

# Rewşa Kurdên Îranî Yên Koçber Di Kurdistanê De Nebaş E



**Dîmenek ji jiyana Kurdên Îranî yên li ser tixûbê Urdinê ku ji kampa Eltaş (Romadî)ê ji ber pirsgirêkên jiyanê û di xeterketina tenahiya wan çûne vir**

Dr. Dîndar Zêbarî, nûnerê Hikûmeta Herêma Kurdistanê li NY'ê de dazanîn ku koçberên Îranî ku li Herêma Kurdistanê de dijîn, rastî rewşeke nebaş û aloz hatine, nemaze piştî ku NY'ê hevkariyên xwe qut kirine û Hikûmeta Herêma Kurdistanê jî nikare hevkariyê tevî wan bike.

Zêbarî, ragihand li ser rênûmayiyên Serokê Hikûmeta Kurdistanê, tevî şandeke bilind a NY'ê û Hikûmeta Kurdistanê seredana Kempa Kurdên Îranî li gundê Girdeçal ya derdora Hewlêrê kiriye ku 3 heta 4 hezar kes li rewşeke aloz de tê de dijîn.

Navhatî qala vê çendê jî kir ku NY'ê hevkariyên xwe qutkirine û seba nebûna şiyana aborî, Hikûmeta Herêmê jî nikare hevkariyê bike.

Dr. Zêbarî, her wiha got ku me daxwaza hevkariyê ji bo çareserkirina pirsa mezin û êxtiyarên Kempa han ji NY'ê kiriye û daxwaz ji Hikûmeta Herêmê jî hatiye kirin ku derfeta karkirinê ji wan re çêbike û weke hemû welatiyên herêmê riftarê tevî wan bike.

Navhatî anî ziman hejmareke zaf ji koçberan di Herêma Kurdistanê de dijîn û bi hezaran malbatên Ereb ên ku rewşa wan li herêmên xwe li Îraqê de nebaş bûye û hatine Kurdistanê, ji nav de hene. Tu yasayek jî nine bo kar û barê koçberan û rêxistina karê wan û hevkariyên aborî ji wan re.

Dr. Dîndar Zêbarî, êrîş kire ser Wezareta Koçberên Îraqê ku heta niha tu hevkariyek tevî derxistiyên Ereb ku hatine Herêma Kurdistanê, nekiriye.

Hêjayî gotinê ye ku nêzîk deh salan e ku koçberên Kurd yên Îranî li Herêma Kurdistanê de dijîn û berê jî NY'ê her sal nêzîk hezar kesan ji welatê sêyem re birê dikirn, lê pirsa han ji sala 1998'an, şûnde rewestaye.

**Çavkanî: PNA**

# Sêyemîn Festîvala Zarokên Rojhilatê Kurdistanê li Sirgûnê

**Nasir Fethî**

Roja şemî, 9’ê Îlona sala 2006’an, sêyemîn festîvala zarokên Rojhilata Kurdistanê li Sirgûnê di binkeya Deftera Siyasî ya Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê di bin dirûşma **em bi hev re ciwanin, me ji hev nekin** bi peyama birêz Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê dest pê bû. Rê û resm her roj demjmêr 5-7 piştî nîvero bi nimayîşa bernameyên xwe birêve diçû, di roja 14’ê Îlona 2006’an bi dawî hat.

Hêjayî gotinê ye ku ev festîvale, berevajê festîvalên berê, erkê birêvebirin û perwerdekirina zarokan bi dest wan nûciwanane bû ku di du festîvalên berê de xwe amade kiribûn, û heta qasekî zaf jî serkevtî bûn.






Beşa werzişî û beşa çandî û hunerî du beşên bingehîn yên festîvala sêyemîn a zarokan bûn.

Di beşa werzişî de pêşbirkêyên: gola biçûk ji bo keçên xwendina destpêkî, gola biçûk ji bo xurtên xwendina destpêkî, gola biçûk ji bo keçên xwendina navendî, hilatina beza (60metrî) bo keç û xurtên xwendina destpêkî û navendî, birêve çûn ku di wan çend pişkane de nêzîk bi 300 zarokan pişikdarî di vê pêşbirkê de kirin.

Pişka çandî û hunerî ya festîvalê pêk hatibû ji:

- Pêşbirkêya nivîsînê ku nêzîk bi 80 kes pişikdar bûn.
- Pêşangeha nîgarkêşanê ku nêzîk bi 250 tablo têde bûn.
- Pêşbirkêya şano û govendan.
- Xwendina sirûdan.
- Stiranên bi kom.
- Stranên takekesî.
- Xwendina çîrokan.
- Xwendina helbestan.
- Pêşbirkêya henekan ji bo zarokên Baxçeyê Savayan.

Hêjayê gotinê ye ku roja dawî ya festîvalê bi xwendina peyama Desteya Nirxwandina: Şano, guvend, nivîsîn, werziş, nimayîşa werzişî ya Karatê û parvekirina zêdetir ji 300 xelatan li ser serkevtiyên festîvalê bi dawî hat.



## 4 Jinên Xwediyê Xelata Nobel Ya Aştiyê Di Konferanseke Navneteweyî De

4 jinên xwediyê Xelata Nobel a Aştiyê bo yekemîn car tevî hev di welatê Îtaliyayê di konferansa navneteweyî ya li ser navê “**dayîkên li ser rûyê erdê ji bo aştiyê di cîhanê de**” pişikdarî kirin.

Hêjayî gotinê ye ku di vê konferansê ku di 22 heta 23’ê Îlona 2006’an li bajarê “Piyacêst” ya başûra Îtaliyayê birêve çû, Bêtî Wîliyamz a Îrlendî xwediyê



xelata Nobel a Aştiyê di sala 1976’an, Şîrîn Ebadî xwediyê Xelata Nobel a Aştiyê di sala 2003’an, Cûdî Wîliyamz a Amerîkayî xwediyê Xelata Nobel a Aştiyê di sala 1977’an û Rîkobêrna Mençûnûma a Gowantanamayî xwediyî Xelata Nobel ya Aştiyê di sala 1991’an pişikdar bûn.

Armanca ji derxistina vê konferansê kîşandina balan li ser bodceyên leşkerî, şer, terorîzm, xizanî û birçî bûn, nexweşî, koletiya karî û cinsî, mifahwergirtina nebaş ji jin û zarokan di hemû cîhanê de hate îlankirin.

**www.irwomen.com**

## Jineke Behrînî Di Girîngtirîn Saziya Siyasî Ya Cîhanê De Ye

Hiya Bent Raşêd Alê Xelîfe piştî 40 salan niha sêyem jin e ku dibe berpirsiyara Civata Giştî ya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî, Hiya li malbateke desthilatdar di welatê Behrînê de ye û di baştirîn xwendingehên derdorê Xelîca Fars û zanîngeha Sorbon a Parîsê de ders xwandiye û niha jî mafnasê navneteweyî ye.

**Jêder: “raassa”**

## Kuştina Jineke Parêzerê Mafê Jinan Di Efxanistanê

Sefiye Emecan, Sekretera Giştî ya Rêxistina kar û barên Jinan li bajarê Qendharê û yek ji parêzerên mafê jinan li Efxanistanê di demekê de ku diçû ser karê xwe, ji aliyê çend kesên nenas bi guleyan hat kuştin. Eva yekem car e ku berpirsyareke dewletî ya jin di Efxanistanê tê kuştin.



Hêjayî gotinê ye ku piştî hiloşîna hikûmeta Taliban û birêveçûna hilbijartinên giştî di Efxanistanê de jin di 13 welayet ji 34 welayetên Efxanistanê hejmareke zaf ji kursiyên parlemanê bi dest xistin.

**Jêder: “BBC”**

### Hunermend Eta Derwîşî:

# "Ez Bi Stiranbêjiyê Dikarim Hestên Xwe Û Gel Bînim Ziman"

*Hunermend Eta Derwîşî kurê Şehîd Mela Ehmed Dewîşî, sala 1969'an ji gundê Berasbê li devera Mirgewer a ser bi bajarê Urmiyê, di malbateke welatparêz û oldar de hate dinê. Navbirî di van çend salên dawî de, bi sedema zext û givaşên rejîma kevneperest û dijî gelî a Komara Îslamî neçar bû ku welatê bav û kalê xwe bi cî bihêle û rêya koçberiyê bigre pêşiya xwe. Eta karê stiranbêjiyê dike. Me bi hewce zanî ku derheq bi jiyan û kar û xebata wî hunermendê nenas û welatparêz bi awayê jêrîn pêre bipeyivin.*

**Hevpeyvîn: Dara Natiq**

**Gelo çawan û kengê bû ku te rêya xizmetkirin bi huner û stirana Kurdî kire armanca xwe?**

Di zarokatiya xwe de min hez ji gotina stiranên Kurdî dikir, lê mixabin ez ketibûme bin bandora malbata xwe û min nedikarî stiranan bibêjim. Malbata min ji xwe re eyb û şerm dizanîn ku ez stiranan bêjim. Hindek caran bi bêy malbata xwe min li dawet û şahiyan de stiran digotin û piştî hingê ez dîketme ber zexta malbata xwe û heta îro jî malbata min pêşiya karê min yê hunerî digrin, lê belê ez nikarim desta ji vî karê xwe yê hunerî berdim.

**Destpêka karê te yê hunerî di bin bandora kîjan hunermend û stiranbêjî de dest pê kir?**

Min di zarokatiya xwe de hez ji dengê hunermendê Kurd, **Mîran Herkî** dikir, lê belê hunermendê navdar, **Şivan Perwer** bandora herî zaf li ser min hebûye.

**Gelo helbest û awazên stiranan tu bi xwe çê dikî?**

Belê, ez bi xwe stiranan dinivîsim û awazan jî ji bo wan çê dikin û heta niha min nêzîk bi 70 stiranan û 3 sirûd nivîsandine.

**Heya niha çi berhemên te hatine tomarkirin?**

Heya niha min yek CD û 3'ê kilîp çê kirine û ez di hewla CDya xwe ya duyê de me. Yekem CDya xwe min li roja 26'e Sermaweza 2005'an bi navê **Nazdar** belav kir.

**Sebeb û hegerên derketina te ji Kurdistanê çi bûn?**

Ez di bin çavdêriya rejîma kevneperest a Îranê de bûm û min nekarî ez wê zilmê li ser serê xwe qebûl bikim. Gelek caran ji aliyê rejîmê ve bêhurmetî bi min dihate kirin, lê ez neçar mam ku warê xwe û biheşta dilê xwe bi cih bihêlim û bera xwe bidime welatê Swêdê.

**Li gor dîtina te asteng û pirsgirêkên ser rêya hunermendên me yên Rojhilata Kurdistanê bi giştî çi ne?**

1- Zalbûna bîr û hizra olî bi ser civakê de 2. Nebûna mafê çandî û hunerî 3. Bêparbûna gelê me ji mafê berheq yê xwe 4. Hebûna deb û tîtalên kevneşop yên civakê û hwd … hemû evane asteng û girêpêçkên ser rêya hunermendên me yên Kurd di Rojhilata Kurdistanê de ne.

**Tu astê huner û muzîka Kurdî bi giştî çawan dinirxînî?**

Huner hesta neteweyî ye. Her însanek ku hez ji neteweya xwe bike, bi baweriya min ew li huner û muzîka xwe jî hez dike. Ez asta huner û muzîka gelê me gelek baş dibînim û hêvîdarim ku bi kar û xebata hemû aliyekê em bikarin vê çanda hêja û bedew bigihîne astekî cîhanî.



Hunermendê dengxweş, Eta:
**"Di zarokatiya xwe de min hez ji gotina stiranên Kurdî dikir, lê mixabin ez ketibûme bin bandora malbata xwe û min nedikarî stiranan bibêjim"**

**Gelo çima hunermend Eta Derwîşî heya niha bi awayekî hewce nehatiye naskirin?**

Heta niha min nekarî bû ku ji aliyê kanalên ragihandinê ve deng û rengê xwe bi gelê xwe bidim naskirin, lê niha ez bawer im ku li kanalên esmanî yên Kurdî û yên Swêdî jî kilîpa min ya bi navê **Babo** hatiye belavkirin. Ez li ser vê baweriyê me ku dikarim niha bi başî xizmeta hunera Kurdî bikim.

**Stiranbêjî li cem te çi tamek heye?**

Bi rastî stiranbêjî li cem min tamek taybet heye. Ez dikarim gelek bi eşkere hestên xwe û gelê xwe bînim ziman.

**Hunermend Eta pêvajoya peydabûn û zêdebûna roj li pey rojê ya hunermendên nû yên Kurd çawa dihesibîne?**

Her hunermendek di rêya xizmetkirin bo netewa xwe de xebatê bike, ji bo min cihê rêz û hurmetê ye.

**Bi dîtina te medya û ragihandinên Kurdî bi giştî û nemaze radyo û Televîzyonan, heya çi qasekê karîne xizmetê bi nasandina huner û stiranbêjên me yên Kurd bikin?**

Bi baweriya min di asteke baş de ne û ez hêvîdarim ku baştir bibin. Hindek ferq û cudayî di navbera hunermendan de tên dîtin, ez hêvîdarim ku ew jî nemîne.

**Peyama te ya dawiyê ji bo xwandevanên me yên Agirî û hunermendên Kurd bi giştî çiye?**

Sipas û pêzanînên xwe li rojnama Agirî dikim, hêvîdar im ku roj bi roj bikare xizmeta bêtir bo netewa Kurd bike û herwisan bi baweriya min rastnivîsîna Latînî nêzîkkirina Zaravên Kurdî ye. Ji bo xwendevanên Agirî jî hêviya hevkariya zêdetir dikim ku palpişt bin bo pêşveçûna zimanê Kurdî. Ez daxwazê ji hunermendan dikim ku bi awayekî berfirah xizmeta çand û hunera Kurdî bikin û hêviya serkevtinê bo hemû aliyekê dixwazim.

# PERWERDEHIYA MIROV

**ADAR JIYAN**
adarjiyan@mynet.com

**P**erwerdehî, bi kurtayî wekî duristkirin û têkûzkirina liv û tevgerên mirov û edilandina şêwaza jiyana civakî tê ravekirin.

Ligel ku gelek watedayînên cure bi cure û girêdayî wê rave û şîroveyên berfireh hatibin kirin jî, dîsa em dibêjin danasîna perwerdehiyê bi qasî pêdiviya wê girîng û çarenîn e.

Di jiyana civakên dîrokî de du cureyên perwerdehiyê yên bingehîn pêk hatine. Yek, perwerdehiya bipergal û ya din jî perwerdehiya bêpergal e. Li aliyê din, gelek pispor û zanyarên perwerdehiyê, pêşketina hişmendiya mirov bi perwerdehiyê ve girêdidin û vê yekê wekî diviyatiyeke çarenîn dibînin. Pirên wan xwestine ku hemû endam û pêgirtiyên xwe bi awayekî xwerû û yekser perwerde bikin û bigihînin.

Wekî tê zanîn, ligel ku gelek lewir û tebayên hovane bi saya perwerdehiyê têne kedîkirin û şerdekirin jî, em ê bêtir li ser giringiya perwerdehiya mirovan rawestin û der barê vê yekê dîtinin xwe derbibirin.

Îro mirov dikare bi saya peydekirin û jêmayên arkeolojîk, rewşa perwerdehiya civakên (mirovên) zemanê berê fêr bibe. Û peyre jî di zanîna bîrkarî(matematîk), avahîsazî(mîmarî), endezyarî, esmannasiyê(astronomiyê) de bigihîjin, li dibistan û perestgehên olî de perwerde dibûn. Heta pergala perwerdehiyê ji hêla wan ve dihate venihêrtin û kontrolkirin

Di şaristaniya sumer û misriyan de ji bo ku zarok bigihên û di xortanî û ciwaniya xwe de werin ser kar an jî bikaribin karê karmendî, perwerdekarî û rêveberiyê bikin, diviyabû ku pêşî fêrî xwendin û nivîsandinê bibin. Perwerdehiya îbraniyan bêtir giranî daye ser dahûrandina Tewratê û ecibandina/pejirandina doktrîn û rêgezên wê. Dîroknasên Çînê, behsa vekirina 100 dibistanên fikirandinê (ramanweriyê) dikin ku 3 000 sal berê (B.Z. bi 1000 salî) di van xwendigehan de gelek ramanwerên navdar perwerde bûne û gihane. Gelek dahûrandin û lêkolînên zanistî yên ku vê yekê diselmînin jî hene.

Her civak û civata dîrokî, ji bo ku hilberîna xwe zêdetir, aborî û hatiniya xwe xurtir û asta jiyana xwe bilintir bike, ketiye nav şardekirin û perwerdekirina mirovan. Û ji bo kes û mirovên ku di wê civatê/civakê de dijîn, di vê çarçoveyê de perwerde bikin, cehd û xebat daye. Bi vê



egerê pergalên çiraxî û şagirtiyê hatine damezrandin û zarok û ciwan li gorî feraset û hişmendiya fermî hatine perwerdekirin. Şagirt û xwendekarên ku li gorî rêgez û azîneyên vê pergalê têne perwerdekirin jî bi lasayîkerî û texlîtkariyeke xurt hatine gihandin.

Di doman û merhaleya perwerdehî û hîndekariya her civakekê de dibistan û zanîngehên hizrê(fikr û ramanê) hatine vekirin û gelek pispor û zanayên demê di van dibistanan de şarde û perwerde bûne. Pergalên rêveberiyê li gorî bîrdoz û ramana xwe pergaleke perwerdehiyê ava dike. Di sazgehên olî de (ango li dêr, mizgeft û hawrayan) qeşe û mele, li fêrgeh û zanîngehên zanistî jî mamoste û fêrkerên zana li gorî bîrdoza fermî hatine wezîfedarkirin. Û ev peyivirdarên fermî, li gorî berjewendiyên serwer û rayedarên wê civakê dersê didin şagirt û xwendekarên xwe. Belê hin caran jî gelek ramanwer û zanyarên dijber û muxalîf jî ji van dibistan û zanîngehên fermî derdikevin. Bo nimûne, rêber û zanyarên olî û felsefî yên mîna “Buddha”, Konfîçyus, Îsa, Mûsa, Hz. Mihemed, Karl Marks di van saziyan de gihane û kesên der û dora xwe li gorî fikr û ramana xwe perwerde kirine.

Hemin ku pewredehî wekî edilandina liv û tevger mirov tê dîtin, îcar divê ku em bêtir têkilî giringiya bizavên mirov bibin û serê xwe pê re biêşînin. Her mirov li gorî şert û mercên ku tê de dijî, perwerde dibe an jî tê perwerdekirin. Ji bo wê divê mercên jiyana civakê û asta perwerdehiya mirovan baş bête nasîn û derfetên perwerdehiyê jî li gorî van şert û mercan werin amadekirin.

Pewerdehî ne karekî demdemê, ketberê an jî tiştekî ji rêzê yê derêha ye. Ew, parçeyekî jiyanê û pêdiviyeke bênavber domdar û jênager e. Kar û hewldanên rojane jî tê de, tu tişt bêyî perwerdehiyê pêkan nabe û bi ser nakeve. Ji bo wê, îro ji her demê bêtir hewcetî bi pîşekariya perwerdehiyeke zanistî û qada pisporiya wê heye.

---

Kaniya Helbestan

# HÊVÎ

**Meryem Hacîpûr**

çiqas ronî bû
tevî te bûn
li ser rêyên pir ji şevên tenêtiyê
çiqas sêvî bû dil
dema ku
vedihûnand
bêyî te
hûrik hûrik
stiranên azadiyê
çiqas tijî bû çav
ji hêsrên hêviyê
dema ku hembêz dikir
te
stêrkên serbestiyê
tu bûyî û çavek
tu bûyî û dem salek
payîzek
pir bi xem û kul û keser
tu bûyî û hawarek
û gaziyek
ku diçilviland
nîgarên xwe
di asmanên rastiyê de
hewar hewar
dîsan hewar
tarîtiya reş û kîndar
hembêz kir û hembêz
ronahiya çavên te
***
çi bi xem
çi bi keser
tu bûyî bi mêvan
di guvenda zer kulîkên reştazîdar
ax
mirina reş û gemar
bi fermana hovên dirinde
çandin li ser singê te yê asîmanî
gulên xwînê
çiqas bê şerm
***
“lorî lorî
bextê min lorî”
tê nalînek li dayîkan
çi dilşewat
ji çiyayê Kurdistanê
dihejîne
asmanên
vî welatî
rêyên bi xem
hêvî dikin
çiqas sêvî
vegerîna ronahiya hebûna te
çiqas xerîb
wek kevokek bê hêlîn
tu bûyî mêvanê axek sar
lê
çavê te yên pir bi evîn
û kena te
me sêviyan
hertim dike mêvanê xwe
ez dizanim
ez dizanim ...

# Fîlma Kurd Bû Yekemîn

Pêşbaziya fîlmên kurt ev 3 sal in ji bo ku piştgiriyê bide sînemagerên ciwan, tê lidarxistin û bi dayîna xelatan bi dawî bû. Pêşbaziya îsal di 1'ê pûşpera 2006'an de, dest pê kir. Di nava 135 fîlman de, 5 fîlm hêjayî xelatê û 3 fîlm jî hêjayî xelata taybet a juriyê hatin dîtin.

Juriya ku ji lîstikvan Yelda Reynaud, Endamê Perwerdehiya Zanîngeha Bîlgiyê Ethem Ozguven, lîstikvan Fusun Demirel, Derhêner Ezel Akay, Gerînendeyê Giştî yê Kovara DVD'iyê Burak Goral, nivîskarê rojnameya Radîkalê Murat Ozer û rêveberê Giştî yê SONY BMG Musicê şemsettin Goktaş pêk dihat, xelata fîlma herî baş da fîlma derhênerê Kurd, Arîn Înan Aslan ya bi navê '**Sî û Ba**', xelata anîmasyona herî baş da fîlma Ayçe Kartal ya bi navê **'Bêmejî (Beyinsiz)**', xelata belgesela herî baş da fîlma Sevgî Ortaç ya bi navê '**Bajarê bi dîwarekî (Tek Duvarlı şehir)**, xelata ceribandina herî baş da fîlma Gulrîz Buberoglu ya bi navê **'Zangoç'**, xelata sêwirandina herî baş da fîlma Halît Akti ya bi **navê 'The Resurrection'** û fîlmên bi navê **'Veqetandin (Ayrılık)'**, **'Iskat' 'Parka şans** a **Kuştepe (Kuştepe şans park'** hêjayî xelata Juriyê hatin dîtin.

Fîlma 'Sî û Ba' li gundekî Wêranşarê hatiye çêkirin. Derhênerê fîlmê Arîn Înan Arslan der barê fîlma xwe de wiha dibêje: "Kesên ku dipirsin mijara fîlmê çi ye? Ez fîlm didim wan. Mijareke wê tune ye, ji ber ku her tiştî îfade dike, bi peyvekê nayê vegotin. Em wêneyên vedibêjin. Dîtbariya li wir, deng, bi muzîkê re di nava çarçoveyekê de tê vegotin. Fîlm piranî bi dîtbarî ye."




Fîlm bi Kurdî ye, dema serî lê dane tu pirsgirêk nejiyan e. Fîlm 15 deqîqe ye. Fîlm bi awayê reş û spî hatiye kişandin û di fîlmê de qet diyalog nine, xwestine bi wêneyan her tiştî vebêjin. Derhêner Arslan, der barê zimanê fîlmê de dibêje: "Di fîlmê de axaftin tune, lê belê temayên hemû yên di fîlmê de bi Kurdî ne." Arslan, berî vê fîlmê, fîlmekî kurt yê bi navê 'Kirinti' ku dema wê 9 deqîqeye kişandiye. Arslan got ku bi taybetî ez spasiyên xwe ji bo şaredarê Yalima Mêrdînê Abdulkerim Adam re dikim û heke ne ew bûya dê ev fîlm nehatiba kişandin. Arslan jî bo muzîka fîlmê jî spasiyên xwe ji bo Mehmet Atli pêşkêş dike.

Nasname: Sî û Ba
Derhêner: Arîn Înan Arslan

Lîstikvan: Mediha Îzgî, Şevin Seven, Hamza Seven, Zeliha Işık

Çêkirin û rêveberî: Rûken Sansor
Derhênerê dîmenan: Mehtap Bayer

Muzîk: Mehmet Atli

**CEMÎL OGUZ/ANF /STENBOL**
**Çavkanî: Rojnama "yeniozgurpolitika"**

**Ji bo bersîvdana Xaçepirsa hejmaran (Sudoku)yê ya nû, tenê van sê xalên jêrîn berçav bigirin:**

**1. Hejmarên 1-9'ê di xet(xêz) û stûna serjêr de tenê carekê dubare dibe.**
**2. Hejmarên 1-9'ê di xet(xêz) û stûna çeprast de tenê carekê dubare dibe.**
**3. Hejmarên 1-9'ê di nava çargoşeke 3×3 de tenê carekê dubare dibe.**

## Xaçepirsa Hejmaran (Sudoku)

| | | | | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| | | 4 | | | 2 | 1 | | 5 |
| | | | | 5 | | | 9 | |
| 2 | | 7 | 1 | 9 | | | | |
| | | 6 | 5 | | 9 | 3 | 7 | 1 |
| | 8 | 5 | | 6 | 1 | 9 | | |
| 1 | | | 2 | 4 | 7 | 6 | 5 | 8 |
| 6 | | | 7 | 1 | 5 | 2 | 8 | 9 |
| | 7 | | 9 | | 6 | 4 | | |
| 9 | | | 4 | | 8 | 5 | | 7 |

## Bersiva Sudoku a Hejmara 45'an

| | | | | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 7 | 3 | 1 | 2 | 9 | 8 | 5 | 4 | 6 |
| 4 | 2 | 6 | 1 | 3 | 5 | 9 | 7 | 8 |
| 5 | 8 | 9 | 7 | 4 | 6 | 2 | 1 | 3 |
| 8 | 7 | 2 | 4 | 1 | 3 | 6 | 5 | 9 |
| 1 | 4 | 5 | 8 | 6 | 9 | 3 | 2 | 7 |
| 9 | 6 | 3 | 5 | 7 | 2 | 4 | 8 | 1 |
| 2 | 9 | 7 | 6 | 8 | 4 | 1 | 3 | 5 |
| 3 | 1 | 4 | 9 | 5 | 7 | 8 | 6 | 2 |
| 6 | 5 | 8 | 3 | 2 | 1 | 7 | 9 | 4 |

agiri

**Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci. php**

**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE
**E - Mail:**
**agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@googlemail.com**



# Şehla Lahîcî Bû Xwediyê Xelata Navneteweyî A Azadiya Weşanê



Roja 11'ê Îlona 2006'an, di pêşangeheke navneteweyî a pirtûkan li bajarê Gotinbergê de, xelata navneteweyî a azadiya weşanê, ji Şehla Lahîcî re hat pêşkêşkirin. Lahîcî yekem jina Îranî ya weşanger, nivîskar û wergêr e ku di sala 1983'an de dezgeha weşana "Rewşengeran" ava kir ku heya niha pêtir ji 200 pitûkên nivîskarên jin yên Îranî çap û weşandiye.

"Lars Grahn", Serokê navenda azadî û komîteya azadiya weşanê (IPA) diyar kir: "Xebat û çalakiyên wê jinê di dezgehê de û herweha xebata wê ji bo mafê jinan gelek arîşe û asteng jêre afirandine û hertim piştevaniya xwe ji nivîskaran, bi taybet nivîskarên jin daye eyanê". Lahîcî heya niha çendîn pirtûk bi kakil û naveroka Femînîstî weşandine.

Bi sedema dijberiya rayedarên rejîmê derheq wan xasmanî û nêrînên Lahîciyê, heya niha çendîn caran jiyana wê bi xeterê re berbirû bûye. Herweha "Lars" got: "Em ji ber cesûriya vê weşangerê di berevanîkirin ji azadiya bîr û ramanê û azadiya weşanê, vê xelatê jêre pêşkêş dikin"

**"Radio Farda"**

# Federasiyona Navneteweyî Ya Rojnamevanan Ji Serkutkirina Berdewam A Çapemeniyê Di Îranê De Nigeraniya Xwe Da Xuyakirin

International Federation of Journalists

Roja duşem, 25.09.2006'an, di daxuyaniyekê de, Federasiyona Navneteweyî ya Rojnamevanan nigeraniya xwe derheq jordeçûna zextê li ser Rojnamevanan îlan kir. Federasiyona han seba vê çendê ku hikûmeta Îranê Rojnamevanên ku seredana derveyî welat dikin, bi sîxoriyê tawanbar dike, nerehetiya xwe anî ziman. Li gor rapora Civata Sinfî a Piştevanî Ji Çapemeniya Îranê ku endamê vê federasiyonê ye, hefteya borî Wezîrê Ewlekariya Îranê got: "Rojava bi rêkirina xwendekaran, Rojnamevan û Kedkaran bo derve li bin piştevaniya lêkolîn yan xwendinê de, wan ji bo karê sîxoriyê bikar digire".

Federasiyonê her weha kiryara han nîşaneyeke nû ya zextê li ser Rojnamevana hesiband, ji ber ku li gor gotina federasiyonê her seferek ji bo derveyî welat dikare buxtana sîxoriyê li ser Rojnamevana bihê zanîn. Federasiyona han her wiha girêdana berdewam a rojname û belavokan jî mehkûm kir.

**Çavkanî: "Radio Farda"**

# 9 Kêşhilgirên Taqima Millî Ya Îranê Dopîngî Derketin Holê



Sefera taqima kêşhilgirên Îranê ku qirar bû di pêşbirkêyên cîhanî li Domenîkenê de beşdariyê bike, bi sedema şik û gumanbûn di "test"(cerîbîna)a 9 ji 11 kêşhilgiran têk çû.

Berpirsyarên ajansa xebat dijî Dupînga cîhanê "VADA", çend rojan berî sefera taqimê, bê agadarî û ji nişkêve seredana taqimê kirin û ji wan "testa" dupîngê girtin. Di encama "test"ê de 9 kêşhilgir dupîngî derketin, lê carê testeke din jî maye û di encama pozetîv bûna "test"ê dê ji beşdarîkirin di vê pêşbirkêyê de bêpar bimînin. Ku ava jî kirîz û qewimîneke mezin ji bo werzişa kêşhirgira Îranê tê zanîn û renge taqim ji pêşbirkêya Qeterê jî bêpar be.

**Jêder: "akhbar-rooz"**

# Mifah Û Bandora Xwarina Masiyan Di Pêşgîrî Ji Çêbûna Penceşêrê Li Jinan De

Zanayên Swêdî di vekolîneke de li ser 4 hezar jinan, gihîştne vê encamê ku cihdana xwarina Masiyên birûn û çewriyeke zaf li bernameya xwarinê di hefteyê carekê de, dikare 70 ji sedê ya xetera çêbûna penceşêrê di jinan de kêm bike. Masiyên xwediyê rûn û çewriyek zaf li berhevdan tevî Masiyên din, 30 beranber zaftir "Esîda" rûn binavê "Amga3" û 5 beramber jî pêtir xwediyê vîtamîna **D** ye.

**"Radio Farda"**

## Rêxistina Efûya Navneteweyî Derheq Serkutkirina Cuda Bîrên Aştîxwaz Li Îranê De Nigeran E

Rêxistina Efûya Navneteweyî di daxuyanyekê de nigeranî û xembariya kûr a xwe li dest biserkirinên nû yên çalakên mafê mirovan, berevankarên mafê kêmaaniyan û çalakên din ku bopiştevaniyê ji mafê azadiya bîr û raderbirîn û civatan di Îranê de bi awayekî aştîxwazane xebatê dikin, îlan kir. Di daxuyaniya han de hatiye ku di rojên borî de parek ji Azerbaycaniyên Îranê ku xwendingeh baykot kirine û 10 kes ji wan kesan ku dixwestin ji bo derbirîna nerazîbûnê seba daliqandina 4 jinên mehkûmkirî xwenîşandanê lidarxin, hatine girtin. Di heman demê de jî Ekber Mûsewî Xoyînî, çalakê bi nav û deng ê mafê mirovan, ku zêdetir ji 100 rojan e bê ragihandina tu buxtanekê û mehkûmkirinê di girtîxaneyê de ye, daye zanîn ku berpirsên Îranî ji bo mecbûrkirina wî bi tobekirinê, ew xistin bin zex û îşkenceyeke giran de. Rêxistina Efûya Nanvneteweyî di daxuyaniya han de ji berpirs û rayedarên Îranê xwestiye ku hindî zûtir dest biserkirin û tirsandina çalakên aştîxwaz ên mafê mirovan bi dawî bîne û ji her cure îşkence û tund û tûjiyekê tevî girtiyan xwe biparêze.

**Çavkanî: "Radio Farda"**